hejmar 60 - Bihar 2017

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravayê kurmancî

Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan

Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Civîna 30 Salîya Kurmancî li Zanîngeha Zaxoyê

Civîna Kurmancî ya 60î rojên di navbera 13 û 20ê gulana 2017an de li Zanîngeha Zaxoyê, li başûrê Kurdistanê, hat li dar xistin.

Heçî Zaxo ye, bajarekî bi têra xwe bedew û kevn e, ku dikeve ser sêkuja sînorên di navbera Kurdistana bakur, başûr û rojava. Bajarekî pirrengîn û pirçandî ye, ku di gel rûniştevanên xwe yên ji netewe û komên etnîkî û dînî yên têvel jîyaneke birayane û bextewer derbaz dike.

Zaxoyê di serdema rejîmên sitemkar û zordest de êş û azarên neheq û nemirovî kişandîne. Bi her awayî rê li ber girtibûn da ku timî di jîyaneke paşketî, hov, nezanî û xizanîyê de bimîne. Hîç aştî û aramîyek nebe para wê ku di gel pêkhateyên xwe wek bira bijî.

Îro pêkhateyên etnîkî yên wek kurd, asûrî/suryanî û ermenî hwd, tevî dîn û mezhebên cihêreng yên wek misilmantî, xiristîyanî û êzîdîtîyê pêkve dijîn û pêkvejîyaneke wekhev, aştî û aramîyê diborînin. Cînar, ji cînartîyê zêdetir wek bira dest didin hevûdû, alîkarîyê didin hev û ji hev re xwedî derdikevin. Hîç yek bi çavekî kêm û nizim li birayê xwe nanihêre û wî piçûk nake, naxîne û timî dide ser serê xwe.

Ev hêvîyeke gelekî mezin dide me, welatê me bi xurtî ji xizanîyê derdikeve û ber bi pêş diçe. Zanîngeha Zaxoyê, ku di sala 2010an de hatîye ava kirin, yek ji nîşanên vê pêşketinê ye. Li hember paşdemayînê û cereyanên sîyasî û dînî yên wek Daişê astengeke berbiçav e ku rûniştevanên Zaxoyê li hev nêzîktir dike. Dinyaya wan ronahî, mêjîyên wan vekirîtir dike û zanistî dixe nav ref û tofên cudacuda yên civata Zaxoyê û Kurdistanê.

Li vir em dixwazin ji dil û can spasî serekê Zanîngehê birêz Prof. Dr. Lezgîn Ebdî Cemîl û cihgirê wî birêz Prof. Dr. Ebdulwehab Xalid Mûsa û herweha hemû heval û karbidestên wan bikin ku em bi dirêjahîya hefteyekê kirin mêvan. Ji hîç tiştekî dirixî nekirin da ku em xwe bi rastî jî li mala xwe, di meydana kar de bibînin. Wan ji me re şahîya 30 salîya xebata Koma Kurmancî jî saz kir û me ew bi hev re pîroz kir.

Beşdarên vê civînê li ser babetên wek Hin peyvên hêla başûrê Wanê, Hin peyvên kêmnas – nenas, Ji dîwana "Baxê Kurda" ya Ehmedê Nalbend, Ji ferhengoka Memduh Birîfkanî ya dawîya dîwana wî, Komek peyvên girêdayî bi balindeyan ve, Nexweşîyên nebatên çandinê û Termînolojîya pizîşkî xebitîn.

**Ev hevalên han di civînê de beşdar bûn:**
Rênas Awdal (Zaxo), Mistefa Aydogan (Mêrdîn), Lezgînê Çalî (Barzan), Ehmedê Dirihî (Çewlik), Elîşêr (Wan), Newzad Hirorî (Dihok), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Eyub Kiran (Qerejdax), Emîn Narozî (Batman), Selam Nûman (Qamişlo), Fadil Omer (Dihok), Zinar Soran (Dêrik), Îsmaîl Şahîn (Sêmêl), Têmûrê Xelîl (Rewan), Reşo Zîlan (Agirî).
**Encamên xebata ji vê civînê li jêrê têne pêşkêş kirin.**

## Komek peyvên girêdayî bi balindeyan ve

**Amadekar: Îsmaîl ŞAHÎN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **bajêre:** bajêrî, bajêle, bacêle, bahêle, pînewalî, pînevalî, şeridî: mirîşka ku li mala xudanê xwe venahewe û hêkê nake, li malên der û cîranan hêkê dike. | kümesin dışında yumurtlayan tavuk | poule qui pond des œufs hors de son poulailler | hen laying eggs outside its nest |
| **balefir:** balefirê ketî, firoke, bi firê ketî, firake, fireke: têjikê balindeyî ewê nû bi firê dikeve. | kanatlandı | oisillon qui commence à voler de ses propres ailes | fledgling: chicken that begins its first flying |
| **banê serî:** kulovanka serê balindeyî ya ku dikeve pişt enîyê û heta serê patikê diçe. | kanatlıların hotozu | aigrette, huppe | vertex |
| **bare:** refa kewan ya rêka koçkirinê /barkirinê girtî. | göçmen keklikler sürüsü | volée de perdrix migrantes | flock of migrating partridges |
| **bareşe:** bireşe: nexşê bersingê kewî, ewê mîna ristikeke reş ji enîyê dest pê dike, li semta çav û guhikan dadikeve û li stûyî herdu ser digehine hev. | kekliklerin göğüs motifleri | marque en forme de ruban noir qui descend du front d'une perdrix vers ses yeux et se rejoint sur le cou | black band of the partridge running from the forehead across the eye and running down the head to form a necklace that encloses a white throat |
| **barik:** varik, têjmirîşka - çi nêr be çi jî mê - hêj bi duristî tekûz nebûyî. Eger mê be, gelek dibêjinê "mamirk" û eger nêr be, dibêjinê "ferxik". | piliç | poulet | boiler, chicken |
| **basik:** 1. bask, çeng, 2. roq, çîpil, çîp, çîq, çîm: lingê balindeyî yê di navbera tilan û ranî de. | 1. kanat, 2. tavuk ayağı | 1. aile, 2 . jambe | 1. wing, 2. leg |
| **bêderpê**: çîqrût, çîprût, bêberpêk, bêderpêk. balindeyekî baskên pêyan rût û bêper. | ayakları paçasız kuş | oiseau à pattes nues, déplumées | bird with featherless tarsi |
| **biderpê**: pêderpê, biperpêk. balindeyê roq yan baskên pêyên wî bi per in. | ayakları paçalı kuş | oiseau à pattes palmées | bird with feathered tarsi |
| **bi firê êxistin**: balefir kirin: mezinkirina têjikan ku bikarin ji hêlînê derbikevin û bifirin. | büyütüp salıvermek | élever des oisillons et les préparer à voler de leurs propres ailes | to grow a fledging to fly |
| **binebirr**: biryayî, binbirr, qedyayî: balindeyên neman û qirrbûna yekcarî bi ser de hatî. | soyu kurutulmuş | dont l'espèce à disparu; éteint, exterminé | extinct |
| **binheftik**: binhefk, berkur: ew parçe û pişk e ku ji serê balindeyî yekser dikeve di bin erzinkê de. | çene altı (kuş) | sous le bec | bird chin |
| **binhêlînk**: têjika dûmahîyê ji hêkê derkeftî ku pêşçav ji hemû têjikan biçûktir diyar dike. | bir kuluçka döneminde çıkan en son yavru | dernier né de la couvée | the last pup during an incubation period |
| **binkurî; bindûv**: ew per in ku yên ji binî bi ser perên kurîyê yên dirêj de dihên. | kuyruk altı tüyleri | plumes du dessous de la queue et des ailes | under-tail coverts |
| **binpişt**: ew pişk e ku ji laşê balindeyî ku dikeve bin piştê û qederekê berî dûmahîya çengan di ser kurîyê re ye. | sırt | partie supérieures qui va du dos jusqu'à la joction des ailes | ridge |
| **çengokirî**; baskokirî: balindeyê şahperên çengên wî bi dest hatîne hilkêşan da ku nefire. | kanat tüyleri kesilmiş | oiseau aux ailes coupées pour l'empêcher de voler | wingclipped |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **çengo kirin**: karê hilkêşan û înanedera şahperên herdu çengên balindeyî da ku nikaribe bifire. | kanatlarını yolmak | ôter les plumes des ailes pour empêcher l'oiseau de voler | to trim a bird's primary flight feathers "primaries" so that it is no longer fully flighted |
| **çûçelk**: têjika mirîşkê ya ku ji nû ji hêkê derkevtîye, hêj bi dû makê ve ye. | civciv | poussin | chick |
| **destkehî**: kewê ku mirov bi biçûkatî û bi destê xwe kehî/kedî kiriye. | yavruluk döneminden itibaren evcilleştirilmiş | perdreau apprivoisé tout petit | hand-tamed partridge |
| **'evdal**; porê nêr, dîkê por. | erkek çil kuşu | francolin mâle | male francolin |
| **fir**: ew qedera firînê ye ku balinde li hewa û li teqekê "li ser hev" û bê dadan pê diçe. | uçuş | vol, envol | flight |
| **firdan**; firîn; çeng li ba xistin: | uçmak | voler, s'envoler | to fly |
| **firxweş**: balindeyê ku xweş difire. | iyi uçan | au vol rapide | swift |
| **hebîs**: nêrekewê bi mezinî hatîye girtin û xudan kirin. | yetişkin iken evcilleştirilmiş erkek keklik | perdrix mâle approvoisée agée | tamed older male partridge |
| **hêkker**: mirîşka xweş û berdewam hêkan dike. | iyi yumurtlayan tavuk | pondeuse, (poule) qui pond bien | egg laying chicken |
| **heram kirin**; herimandin, xera kirin: | bozmak (kuluçka yumurtası için) | abîmer l'œuf, pourrir | to spoil egg (of hens) |
| **înaneder**; derxistin: bişkivandina hêkan û derxistina têjikan ji berê balindeyan ve. | civciv çıkarmak | éclore (œuf) | to hatch |
| **ji hêk westan**; ji hêk ve bûn: ji hêkkirinê rawestana mirîşka hêkker. | yumurtadan kesilmek | cesser de pondre | to stop laying eggs |
| **kewbîr**: demê nêçîra nêrekewan û kurkbûna mêkewê ku dikeve meha nîsanê hingê ceh zer dibin û pûş dibin. | güney Kürdıstan'da nisan ayına rastlayan erkek keklik avı | saison de chasse aux perdrix mâles où l'orge commence à mûrir (avril) | hunting male partridges in april in southern Kurdistan |
| **kewê biqîj**: cûnekewek e, xwandina wî bi ser dengê "qu wê we qu wê we" ve diçe. | çığırtkan keklik | perdrix criarde, vociférante | vociferous partridge |
| **kewê davdoz**: | tuzakların farkında olan ve onlardan kaçınan keklik | perdirx avisée qui évite les pièges | partridge that is aware of traps and avoid them |
| **kewê lal:** kewê di xwandina xwe de sê çar caran li dengê xwe vedigere. | kekeme keklik | perdrix bégayeuse, qui ressasse son chant sans l'achever | partridge that does not complete its song and repeats it over and over |
| **kewê pax:** cûnekewekî dengstûr û awaznexweş e, xwandin û qebqeba wî li kewên dî tehl e. | kaba sesli keklik | perdrix au cacabement fort et désagréable | partridge with loud and ugly voice |
| **kewê pîk**: cûnekewekî şerker e, demê kew nêzîk dibin, wê gavê dixure û karê şerî dike. | kavgacı keklik | perdrix agressive, querelleuse | aggressive partridge |
| **kewê ribat**; rubad, kewê nêçîr: ewê rût û bê rikeh ku li erdî dihête girê dan û danan, kozik bo dihête çêkrin da ku bi rêka xwandinê kew qest bikinê û bikevine davikên li pêşîya wî hatîne vedan. | avcı keklik | perdrix attachée qui par son cacabement attire les perdrix à piéger | decoy male partridge |
| **kewkedî**: kewê kehî/kedî. | evcil keklik | perdrix aprivoisée | tamed partridge |
| **kewreşik**: cûnekewek e, ji kewê asayî piçekî rengtarîtir û biçûktir e, ji gotinan, hindek carinan, di gel bara (ref) kewî hatîye dîtin. | koyu renkli keklik | perdrix noire | black partridge |
| **kewvavêr**: demê barkirina kewê zozanî ye. Ji 20ê meha sibatê heta serê meha adarê vedikêşe. di vî demî de, kewê xwecih dimînin û yên zozanî qesta zozanan "cihê têjikînîya xwe" dikin. Li wê derê dibine cot û hêkan dikin. | yaylacı ve yerli kekliklerin ayrışma zamanı | période allant du 20 février au début mars au cours de laquelle perdrix sédentaires et perdrix migrantes vers les estives se séparent | time of the year (in late winter) when mountain partridges separate from lowland partridges and migrate back to the highlands |
| **davdoz**: | kuş tuzağını gören keklik | perdrix avisée, qui s'aperçoit des pièges | partridge that sees bird trappings |
| **kewxurikan**; kewxurikanê: berbûna hev û qebqeba şerî ya nêrekewan. | keklik dalaşı | combat de perdrix | partridge quarrel |
| **kumir**; kumirk, kumbir, timir, dumir: limtegoştê sorê mîna tancê bi banê serê dîkilê mirîşkê ve. | ibibik | crête | rooster comb |
| **kund**; dûvkurt, dûvqut: balindeyê dûv û kurîya wî qut. | kuyruğu kısa kuş | à queue courte | short-tailed |
| **kunqijik**: li kunekevra asê ku qaqîşk (cûne qirereşkek e) bo xwe dike hêlîn. | yüksek kayalıklardaki karga yuvası | cavité rocheuse, haut perchés d'accès difficile où le corbeau fait son nid | rocky hole used of crow as nest |
| **meriqîn**; cilqbûn, xerab bûn: xirabbûna hêkê ya ji ber mana demekî dirêj li ber germayeke bilind. | cılk | se gater (œuf) | to rotten, to go bad (of eggs) |
| **miqebiç**: kewê bi têjikatî dihête xudan kirin, tenê xwedîyê xwe nas dike. Gelekî xurt e, cîyê rûs (rût) ji laşê mirovî dide ber nikilan. | yavruyken evcilleştirilmiş keklik | perdrix apprivoisée dès son plus jeune âge qui reste agressive envers tous sauf son approviseur | partridge tamed from the time it was a chick and is hostile against everybody except its tamer |
| **mirîkane**: girêka donî ewa di ser kurîya balindeyan re. | kuyruk üstü bezi | glande uropygiale | uropygial gland |
| **margîroyî bûn**; marîgîroyî bûn**:** | erkek kekliğin çiftleşme özlemi | perdrix mâle en rut | longing for mating of male partridges |
| **na'orte:** di demê kurkbûna mêkewan de civîna nêrekewan ya li şinikî (şinik: dîk) ku gava nêrekew ji mêkewan vediqetin. | erkek kekliklerin kuluçka döneminde zayıf bir erkek keklik etrafında onunla çiftleşmek için toplanması | attroupement des perdrix mâles autour d'un mâle faible quand les femelles ne sont pas disponibles | gathering of male partridges around a weak male partridge for sexual mating when the female partridges are not available because of hatching |
| **nikildan**: nikilder: bi nikil şikandina çûçelkê ya hêka nebişkivî ya çûçelk tê de da ku çûçelk jê derbikeve. | civcivin yumurtadan çıkmak için yumurta kabuğunu gagalaması | piquer l'œuf pour sortir sa coquille (poussin) | to pick (an egg) |
| **nikilseranê**: şerrê dîkilên mirîşkan û nêrekewan e ku gava bi nikilan berhingarî serê hevdu dibin. | horoz ve erkek kekliklerin gagayla dövüşü | combat de coqs ou de perdrix mâles à coups de bec | fight between birds in which they peck each other |
| **pilpilk**; pêpilk, spîyên mirîşkan, pind, pend: pêşîk û kirnîkeke biçûk ya bê çeng e. Bi şev li ser pîst, per û xwîna balindeyên kehî dijî. Bi roj xwe di kelş û kunên kolikan ve vedişêre. Ew xwe kom komî di bin çeng û navranên wan de diçirisîne heta lê dibe şev. **Latînî:** *mecanthus stramincus* | kümes hayvanları biti | pou de volaille | bird mites |
| **pilpilkî**: mirîşk û balindeyên kehî yên pilpilkan lê daye. | kümes hayvanları bitiyle bitlenmiş | infestée de poux (volaille) | infested by mites |
| **pirz**; pûrt: perên nazik û şela yên li laşê sorîlank û têjika balindeyî ve, ku demê ji nû ji hêkê derdikevin, ango berî per lê peyda bibin. | tüy | duvet d'oisillons | down |
| **qebîn**: qebqeb | ötmek (keklik için) | cacaber | to sing (of partridges) |
| **serdifink**; xîlik: parçeyeke nerm û çermîn e, herdu xinxinkên balindeyî di nav re ne. | burun üstü eti | | snood |
| **serhêlînk**: têjika balindeyî ewa berî hemû têjikan ji hêkê derkeve. | kuluçkadan ilk çıkan civciv | premier-né d'une couvée | first hatched chick |
| **şinik**: kewê nêr, dîk: | erkek keklik | perdrix mâle | male partridge |
| **spîlik**: 1. spîyatîya hêkê, spîka hêkê, 2. parçeyê girover yê rengîn ku li neynika çavê balindeyî werhatîye. | 1. yumurta akı, 2. kuşların gözlerindeki renkli küre | 1. blanc d'œuf, 2. iris de l'oeil d'un oiseau | 1. egg white, 2. bird eye ring |
| **wirîçwirîç**; çewçew: | ötmek (serçeler için) | pépier | to tweet (for sparrow) |
| **xerz**: tovê hêkan yê biçûk yê di malhêkê de kom bûyî ku piştî fisandinê dibe hêk. | yumurta (tavuk ve balıklar için) | frai | spawn |

# Hin peyvên kêmnas – nenas
## - VII -

**Amadekar: Reşo ZÎLAN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| velîstin: firkketina dest û pêyan | burkulmak | se faire une entorse (au poignet, au pied) | to be twisted, to be sprained |
| vepesirandin | soğutmak, ılık hale getirmek | attiédir | to make lukewarm |
| vepesirîn | ılık hale gelmek, soğumak | devenir tiède, refroidir | to become lukewarm |
| qewartin | oymak | évider | to carve |
| weza kirin: zeîf kirin | gücünü zayıflatmak | affaiblir | to weaken |
| xerz | 1.fidan, 2. balık yumurtası, 3.havyar | 1. plan, planton, 2. œuf de poisson, 3. caviar | 1. sapling, 2.fisheggs, 3. caviar |
| xirmaşe | tırmık | râteau, herse | harrow |
| xêv: xêvik, dilsax, kawik | naif | naïf | naive |
| xewtehlî bûn: xew tewirîn: xew revîn, xew verevîn, xew veherimîn, xew teqizîn, dijxew bûn, xew lê herimîn | uykusu kaçmak | avoir du mal à se rendormir, avoir une insomnie | to be unable to sleep |
| xiroşme | karma karışık, savaş alanına dönmüş | sans dessus dessous, chaotique | turmoil |
| xişt: 1.naçix, labût: rimeke taybetî ye ku pê masîyan digirin | zipkin | harpon | harpoon |
| zanc: cot, zo, “*zanc û fer*”, <cot û kit, zo û fer, cot û tek> | çift | pair | pair |
| zexmik: goştê xeşandî li ser savar yan birincê | pilav üzerine konan haşlanmış et | viande bouillie, servie sur le pilaf | cooked meat put on bulgur or rice |
| zî: kulîyek hirî bi têra teşîyekê | bir iğlik yün | quantité de laine convenable pour un fuseau | amount of wool suitable for one wool spinner |
| zîbende | yakışıklı, şık | qui porte beau, seyant | good-looking |
| zirmol: zirtole | kaba | grossier, malotru | rude, impolite |
| zirz | sert, aksi | rude, revêche | rough |
| zivir: “*hewa wisan zivir bû*” | bozuk, sert | mauvais, maussade, rude | harsh |
| hegîş | madenden ateş karıştırıcısı | tisonnier, ringard, pique-feu | fire place rod |
| binşûjin: bisûjin,derzîya gir, derzîya ’eba | küçük çuvaldız | grosse aiguille à coudre des capes | small packing needle |
| zexam: “*wî zexamî dikir, min ew da erde*” | pehlivan güreşçi | lutteur | master of wrestling |
| lê ’êtirîn | başına bela olmak | être importuné pour qch./ ne savoir quoi en faire | to be hindered, to get in trouble |
| soxe; soxa | ölüden kalan şahsi eşya (giysi, tüfek, kılıç, kalkan, bıçak, tabanca vs) | effets personnels d’un défunt | personal belongings of a dead person |
| xewisî; vexewisî | yalancı uyku | faux sommeil | allegdely asleep |
| xewisîn; vexewisîn | uyur gibi etmek | faire semblant de dormir | to pretend to be asleep |
| xewisandin; vexewisandin | uyur gibi ettirmek | hypnotiser, mettre en état de sommeil | to hypnotise |
| peyîk; peyîsk | merdiven | degré, échelle | ladder, stairs |
| sargermî | üşütme | | cold (sickness) |
| şeplorî | kurdeşen | refroidissement | urticaria |
| qolik; çomaq | davul tokmağı | maillet pour percussion | drum club |
| sersot | eğşi, köseği | baguette de percussion | poker (for a fire) |
| rêbirr | yol kesen | bandit | bandit |
| gulmast; gêlemast | süt yoğurt karışımı bir yiyecek | plat fait d’un mélange et de yoghourt | food made of mixing milk and yoghurt |
| giv; givî | peynirin torbaya dökülmeden önceki hali | l’état du fromage avant son égouttement | before the cheese is poured into the bag |
| serxas | başbuğ | chef d’une troupe | officer of irregular troops |
| rêvî; rîvî, revî, gurî, pêtik, alav | alev | flamme | flame |
| nojek | azgın | enragé, très agressif | rowdy |
| rûtal, rûtele, rewtele | hayta | canaille | rascal |
| rewas kirin | atların yele ve kuyruk tellerini kesmek | couper la crinière et les crins de la queue d’un cheval | to trim horse mane and tail |
| dureh, duqor, ducisin | melez | hybride, métissé | hybrid |
| cidan, ci’dan | 3 yaşında erkek deve | chameau de 3 ans | three-year old male camel |
| mencî | 3 yaşında dişi deve | charnelle âgée de 3 ans | three-year old female camel |
| maxlûl, mexlûl | 2 yaşındaki deve (dişi - erkek) | chameau ou charnelle agé de 2 ans | two-year old camel |
| şayiş | endişe | souci, inquiétude | worry |
| veherandin | onarmak | réparer, restaurer | to repair, restore |
| jê firk ketin | ayrı düşmek, uzaklaşmak | s’éloigner l’un de l’autre, être séparé | to become separated from each other |
| kulxe; himbiz | sık | dense, grouillant | thickset and crowded |
| çing: çawan | nasıl | comment | how |
| xulî bûn | huylanmak | être de mauvaise humeur, être contrarié | to be in bad humor |
| nexwazî: “*ez ne ku nexwazîyê dikime*” | isteksizlik | manque de volonté | unwillingness |

# Hin peyvên hêla Başûrê Wanê
## - II -

**Amadekar: Mele Şeban TURGUT û ELÎŞÊR**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| helemar: koma maran | yılan sürüsü | repaire de serpents | den of snakes |
| herişîn | 1. yıkılmak, çökmek, 2. sıyrılmak, tahriş olmak | 1. s’effondrer, 2. s’écorcher | to be/become mashed, be/become smashed |
| herişandin | 1. yıkmak, 2. sıyırtmak, tahriş etmek | 1. démolir, 2. s’écorcer, irriter | to mash, smash |
| hespê şêh: hespê qîçik | kirli sarı at | cheval isabelle | dun horse |
| hewîk | bataklık | marécage | swamp |
| hilwaz; kizir | az kurumuş | demi-sec | damp, easily dried |
| hon; ber, berok: berê paleyan | biçimlik alan | champ à moissonner affecté à un moissonneur | land in front of the harvester (to work on) |
| hûrkên piyan: qeydikên pêyan | ayak bileği | cheville | ankle |
| înan /xistin îşteîştê | strese sokmak | stresser | to put stress |
| kelajik; keleşk, keveşk, kevişk, keletor, kapek, kelpik | saç kepeği | pellicule (de cheveux) | dandruff |
| di kel de birin: qertîşê wê li ser rakirin | yara kabuğunu kaldırmak | enlever la peau d’une plaie | to scrape |
| kele: binê leyanê/hedikê /lekanê | kar ayakkabısı altı | semelle d’une raquette de neige | underside of snow shoe |

| | | | |
|---|---|---|---|
| kepîfeç: xwedîyê kepîyê tepisî, pozpelixî, pelisî | basık burun | nez épaté | saddle nose |
| kerav: ava dibe du ker/şeq | ırmağın iki kola ayrıldığı yer | bifurcation d'une rivière, d'un cours d'eau | bifurcation |
| kerê kotanê: den, dêndî, dênde, dinde, hesinê gêsin pê ve tê girêdan | pulluk kulağını sabana bağlayan metal kısım | pièce métallique qui relie le bâti au soc de la charrue | metal part that links the ploughshare with the plow |
| kêlinçk | hafif bir yumruk | un léger coup de poing | slight blow |
| kilk: dûvê heywanan yê kurt (yê bizinê) | kısa kuyruk | queue courte d'un animal (chèvre) | short tail of animals (like goat) |
| kimbêl: tarta li çolê çêdibe | doğal tezek | bouse de vache naturelle | cowpat dried on the field |
| kirujk, kurîşk, kiruşk | büzgü | pli, pince | pleat |
| kornak | gübrelik | fumier | pressed dung collected to be cut into pieces for heating |
| kovil: qoç, qurm | kök, ağaç gövdesi | tronc d'arbre | stump |
| kurebeq | çamurlu gölet | flaque, étantg boueux | puddle |
| kûvî: kurh, pişt (wek: kurha dasê) | sırt (kesici aletlerde) | dos (d'un instrument tranchant) | back of sickle, axe etc. |
| kwarik; kuwar, selemêş | kovan, arı kovanı | ruche | hive |
| maçik: destika tirpanê | tırpan eleceği | manche du faux | grips of the scythe |
| malmişt: çop, zibilê nav malê | çöp | ordure ménagère | household garbage/dust |
| marûte; sirne: koma masîyan | balık sürüsü | banc de poissons | shoal of fish |
| meyav: ava meyî, ava sekinî, ava mend | durgun su | eau stagnante | bayou |
| mêzaxe: ciyê ard ku ji bin beraş tê | su değirmeninde unun döküldüğü yer | déversoir de farine d'un moulin | mill spout |
| mikare: miqar | keski | ciseau plat | chisel |
| mirk: tiftîka binê mûyê bizinan | yüksek kaliteli keçi yünü | duvet de chèvre | soft and fine kind of goat hair |
| misas: hesinê binê gopal | baston dibine takılan demir | pique-bœuf, aiguillon | iron tip of a walking cane |
| mukre: perçe erdê di nav zevîyê de ya imkana kêlana wê tunebe | tarlada sürülmesi mümkün olmayan yer | parcelle d'un champ impropre au labourage | an unploughable area in a field |
| nikore | değirmen taşı bileme keseri | instrument à aiguiser les meutes | stone sharpener |
| nirqozik: niqrosik, neqlosk | uyuklama | somnolence | drowsy |
| niştav; binavî: ava ji cihê avdanê derbas dibe | sulamadan taşan su | l'eau qui dépasse l'aire à irriguer | water that excedes the limits of the irrigated area |
| nûkanê; cîqanê | "beni görmedin", kuku oyunu | coucou ! jeu de cache-cache | peek-a-bow |
| nûyîn: cihoka nixamtî, çavika ku ava çalavê jê derdikeve | kanalizasyon | canalisation en terre cuite | earthenware water pipe |
| oremarî | koçları dik ve doğru olan teke /keçi türü | bouc à cornes droites | ram and hegoat that has straight horns (especially from Oramar region in Hakkari) |
| pertal: quruncok | çimdikleme | pincement | pinch and nip |
| pertal kirin: quruncandin/quruncok avêtin | çimdiklemek | pincer | to pinch and nip |
| pêpapûl: pêtikpan | düztaban | qui a des pieds plats | flat-footed |
| pêperî | ayak parmakları yapışık | qui a des orteils collés | web-toed |
| pilorîk: biraştina şêlim, kartol, sêv û hwd di nav pelên agirî de | közde meyve/sebze pişirmek | cuisson sur des braises de légumes ou fruits | turnips, potatos, apples and the like baked under ember |
| pînî: ard di avê de dikelînin û rûn dikin ber | su, un ve yağdan yapılan bir yemek | bouillie de farine au beurre | food made of cooking flour in water and oil |
| pîxam: bêxemî: mirovekî pîxam | gamsız | insouciant | careless |
| popîn | hotozlu tavuk | poule avec une crête | chicken head plumage |
| porsil: sil, silop | mayis, hayvan pisliği | bouse de bétail | cattle manure |
| pozik: cihê binê şîpê yê teng | darboğaz | goulet | bottleneck |

# Termînolojîya pizîşkî

## - VI -

**Amadekar: Lezgînê ÇALÎ**

| kurdî | tirkî | fransizî | înglizî |
|---|---|---|---|
| ta | ateş, humma | fièvre | fever |
| tabir, taşkên | ateş düşürücü | antipyrétique | antipyretic |
| tagirtî | ateşi olan, ateş yapan | fièvreux, qui a de la fièvre | feverish |
| tadêr | pirojenik, ateşten oluşan | pyrogenique | pyrogenic |
| têhnhez | termofil, termofilik | thermophile | thermophile, thermophilic |
| teşenekirî | yayılmış, yaygın | répandu | disseminated |
| teşene kirin | yayılmak | se répandre | to disseminate |
| teşenekirin | yayılma, dağılma | dissémination | dissemination |
| azmûn | test | test, examen | test |
| tevizandî | uyuşturulmuş | endormi, engourdi | made numb |
| tevizandin | uyuşturmak | endormir | make numb |
| tevizî | uyuşmuş | endormi, engourdi | affected by numbness |
| tevizîn | uyuşmak | s'engourdir | numbness |
| çarekar | terapist | thérapeute | therapist |
| çare | terapi, tedavi | thérapie | therapy |
| timpejîk | yöresel hastalık, belirli bir topluluğa özgü hastalık | maladie endémique propre à une région | endemic |
| tirşî | asit | acide | acid |
| tirşatî | asidite | acidité | acidity |
| tirşîhez | asidofil, asidofilik | acidophile | acidophil, acidophilic |
| tirşxwînî | asidoz, akademç, şeker hastalığında kanın asitli hali | acidose | acidosis, academia |
| ûrkulî | gastrit, mide mukozası iltihabı | gastrite | gastritis |
| ûrûrûvîkulî | gastroenterit, mide ve bağırsak iltihabı | gastro-entérite | gastroenteritis |
| verişiyan/ vereşîn | kusmak | vomir | vomiting, emesis |
| werimî/ perçifî, êvitî | şişmiş | enflé, gonflé | oedematous, swollen |
| werimîn/ perçifîn, êvitîn | ödem, şişme | œdème | oedema, swelling |
| xwebihujîn/xwebihujandin | 1. otoliz, 2. otolize olmak/ etmek | autolyse / autolyser | 1. autolysis, 2. to autolyze |
| xwedijelaş | otoantikor | auto-anticorps | autoantibody |
| dijelaş/ dijeten | antikor | anticorps | antibody |
| xwekar | 1. otomatik, 2. otomat | 1. automatique, 2. automate | 1. automatic, 2. automaton |
| xwekarî | otomasyon | automation | automation |
| xweser | otonom, özerk | autonome | autonomous |
| xweserî | otonomi, özerklik | autonome | autonomy |

# Nexweşiyên nebatên çandinê

Amadekar: Eyûb KIRAN

| kurdî | latînî | tirkî | fransizî | înglizî |
|---|---|---|---|---|
| darhişkîya nîskan | *fusarium oxysporum* | mercimek solgunluk hastalığı | fusariose | pea-wilt |
| arîya (pembûloka) sêvan | *podosphaera leucotricha* | elma küllemesi | mildion de pomme | apple powdery mildew |
| zengreşîya (jengreşîya) fistiqan | *pseudocercospora pistacina* | antep fıstığında karazenk | rouille noire de pistache | pistachio black rust disease |
| zenga (jenga) genim | *puccinia recondita* | buğday kahverengi pas hastalığı | roulle brune de blé | leaf rust fungus of wheat |
| zengzerîya genim | *puccinia striiformis* | buğdayda sarı pas | rouille jaune de blé | stripe rust |
| ariya (xulika / pembûloka) genim | *erysiphe graminis* | tahıl küllemesi | mildion poudreux des graines | grain powdery mildew |
| ariya (xulika) xiyargelan | *erysiphecichoracearum* | kabakgillerde külleme hastalığı | mildion poudreux de cucurbitacées | curcurbit powdery mildew |
| darhişka pembo | *verticillium dahliae* | pamuklarda solgunluk hastalığı | verticilliose | cotton leaf chlorosis |
| zenga (jeng) nokan | *uromyces ciceris-arietini* | nohut pas hastalığı | rouille de pois chiche | chickpea rust disease |
| ariya (xulika) rezan | *uncinula necator* | bağ küllemesi | oïdium de vigne | powdery mildew of grapevine |
| şitilhişkîya pembo | *alternaria solani* | pamuklarda fide kök | alternariose | seedling root rot disease in cotton |
| kokşewata nîskan | *ascochyta medicaginicola* | mercimekte kökboğazı çürüklüğü | ascochyte medicinale | burning spot disease |
| zenga (jeng) mêxikan (qurnefilan) | *uromyces dianthi* | karanfillerde pas hastalığı | rouile d'oeillet | carnation rust |
| ariya (xulika) gulan | *podosphaera pannosa var. rosae* | güllerde külleme hastalığı | oïdium de rose | rose powdery mildew, |
| zenga (jenga) gulan | *phragmidium mucronatum* | güllerde pas hastalığı | rouille de rosier | phragmidium mucronatum |
| pelkufkîya pelên bacansoran (fringiyan) | *cladosporium fulvum* | domates yaprak küfü | cladosporiose de la tomate | tomato leaf mold |
| kokşewata îsotan | *phytophthora capsici* | biberlerde kökboğazı yanıklığı | phytophthora capisici | root-head blight of peppers |
| balûka kartolan | *synchytrium endobioticum* | patates kanseri hastalığı | gale noire | potato canker |


arîya (pembûloka) sêvan
*podosphaera leucotricha*


kokşewata nîskan
*ascochyta medicaginicola*


zenga (jeng) mêxikan (qurnefilan)
*uromyces dianthi*


zenga (jeng) nokan
*uromyces ciceris-arietini*


darhişka pembo
*verticillium dahliae*


ariya (xulika) xiyargelan
*erysiphecichoracearum*


ariya (xulika / pembûloka) genim
*erysiphe graminis*


zenga (jenga) genim
*puccinia recondita*


darhişkîya nîskan
*fusarium oxysporum*


zengreşîya (jengreşîya) fistiqan
*pseudocercospora pistacina*



balûka kartolan
*synchytrium endobioticum*


ariya (xulika) rezan
*uncinula necator*


kokşewata îsotan
*phytophthora capsici*


ariya (xulika) gulan
*podosphaera pannosa var. rosae*


şitilhişkîya pembo
*alternaria solani*


zengzerîya genim
*puccinia striiformis*


pelkufkîya pelên bacansoran (fringiyan)
*cladosporium fulvum*

# Ji Baxê kurda:
## sercemê dîwana Ehmedê Nalbend - berg 1
## - II -

**Amadekar: Newzad HIRORÎ**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| bijiyan (jêk bijyan) (tnp.) | dağılmak | se disperser | to disperse |
| bîrker, çolang | dokumacı (Kürt “şal û şapik” dokumacısı) | tisserand (de costumes kurdes) | weaver (of Kurdish dresses) |
| buhiştin: bihiştin, buhijîn | erimek | fondre | to melt, to crumble |
| cihêl | genc | jeune | young |
| çik kirin; miçiqandin | kurutmak | sécher, assécher | to dry off, tu cut off |
| daresyan, daresîn (tnp.) | çullanmak | assaillir, attaquer, se jeter sur | to assail |
| dinya şeqandin | dünyayı gezmek, dünyayı dolaşmak | parcourir le monde | to go around the world |
| dinyaşeqîn | dünyayı gezen | globe-trotter | world roamer |
| fertene (m.) | hengame, kargaşa | tumulte, tohubohu | turmoil |
| gurî /gurrî/ (m.) | alev | flamme | flame |
| hefhef (m.) | aşırı tamah | radin, avare | greed |
| hevran (m.) | değirmene götürülen buğday yükü | charge de blé à moudre | grain for milling, milled grain |
| hilo (n)! | kalk! | lève-toi ! | get up! |
| hing (m.) | ağır inme | coup sévère | heavy stroke |
| jiyar (m.) | geçim | subsistance | living |
| kezax (m.) | budama | élagage | pruning |
| mizeyt | kuru üzüm yapma işlemi | processus de fabrication de raisin secs | process of making raisens from wine grapes |
| pê li dilî nan | isteğine rağmen (idiom) | contre son gré | to supress one’s desire |
| qelp (m.) | kabuk | coquille, écorce | shell, skin |
| renîn (tp.): xeritandin | kazımak, yontmak, rendelemek | tailler, raboter | to scratch off |
| rişt: rivişt, ribişt (n.) | döl, evlat | progéniture | offspring |
| sîkar | kılıç, süvari kılıcı | sabre | sabre |
| şaqol (n.) | uzun ve ince bacak | jambe longue et fine | long trunk, thin and long leg |
| tirken: tirek, tiro | osurgan, yellenen | péteur(se) | fart |
| tolaz | genç | jeune | young |
| vewerhan (tnp.) | çökmek, yıkılmak | se dessécher, se désagréger, s’effondrer | to be/become dry, to disintegrate, to collapse |
| xav û xilêl | güçsüz, dayanıksız | faible, frêle | weak |
| xilêl | uykulu, uyuşuk | endormi, apathique | drowsy |
| xirandin (tp.) | yoldan çıkartmak | séduire, faire dévier du bon chemin | to drive away, to delude |
| xweşxura | obur | glouton | gluttonous |
| zûr | az yeşillikli taşlık küçük tepe | monticule, pierreux parsemé de verdure | small hill with rocks and little grass |

# Ji ferhengoka Memdûh Birîfkanî
## ya dawîya dîwana wî - IV -

**Amadekar: E. NAROZÎ**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| xazok; xazûk, xazxazok: | 1. açgözlü, 2. dilenci | 1. avide, 2. qui mendie, mendiant | 1. beggar, 2. greedy |
| xefik: xefk, faq, fex, feq | tuzak | piège | trap |
| xelîtik: xelît | boyuna asılan çanta | sac porté en bandoulière | quiver |
| xilt | bir cilt hastalığı | une maladie de peau | any generalised skin lesion |
| xepare: xepar, berkol, xilxilandin, tevirkirin | eşeleme, çapalama | sarclage | lightly digging beneath a plant in order to soften up the soil |
| xerpişandin: xirmîçik, [xirmûşik/ termûşik] lê dan | tırmalamak, cırmıklamak | égratigner, pincer | to scratch |
| xezam; xezan | sonbahar, güz | automne | automn |
| xilingîn: kulîn | aksamak, topallanmak | boiter | to limp, hobble |
| xilole | oyuk | creux, caverneux | hollow, cavernous, porous |
| xirek | yalama, laçka | lâche, détendu, qui a du jeu | slack |
| xirepşan: pevçûn | vuruşmak | s’affronter | struggle, battle |
| xirîyan: ji rê derketin (fikrî) | yoldan sapma | dévier du bon chemin, dérailler | to go astray, to be perverse |
| xirîk | hıçkırma | sanglot | sob |
| xirş; şixir; darşixir: dara bêber (bêmêwe) | ürün vermeyen ağaç | arbre stérile, qui ne donne pas de fruit | barren (of trees), strile fruit tree |
| xurdewat | hırdavat | bric à brac | odds and ends |
| xuristî/xweristî | doğal, tabii | naturel | natural, self-made |
| xurî : firî | yün | laine | wool |
| xuşînk; xweşik | güzel, hoş | beau, belle, agréable | handsome, pretty, nice |
| xuşîmank; xweşik: (ji bo zarokan) | güzel, hoş | charmant, mignon (enfant) | charming (child) |

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE, supplément du Bulletin de liaison et d’information

*Directeur de la publication :* **Reşo ZÎLAN,** *Réalisation :* **M. HASSAN**